**Birêz Mistefa Hicrî:**
**"Bi tu awayî mebesta min ew nebûye ku bêjim Dr. Qasimlo kesekî tekrew bûye".**
»»»» R: 3






**PDKÎ: "Xelkê Kurdistanê di hemberî qedera xortên xwe yên fîdakar de bê helwest namînin".**
»»»» R: 2



*Bidestveanîna mafên neteWî yên gelê kurd di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de*

# Agirî

*Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî*
*www.agirimedia.org Hejmar (254) 21-05-2015 Buha (150) Tûmen*



**Birêz Nesrîn Qasimlo:**
**"Melayên hakim di Îranê de bûne cihê şerm û rûreşiyê ji bo meseb û herweha welatê Îranê ".**
»»»» R: 2

## Mehabad ne bi tenê ye





**Meşên nerazîbûnê yên di bajarê Mehabadê û bajarên din yên Kurdistanê de, bû sedema birîndarkirin û girtina zêdetir ji 200 kesan ji aliyê hêzên leşkerî û ewlehiyê ên rejîma Îranê ve.**

Hejmarek ji birîndaran ji tirsa hêzên ewlekariyê amade nebûn ku serdana nawendên dermanî bikin.

Kurdan li herçar beşên Kurdistanê û heya di çendîn welatên cîhanê de jî, piştgirî ji serhildana xelkê Mehabadê kirin. Her di vê derheqê de Partiya Demokratîk ya Ehwazê û Kongireya Neteweyên Îrana Federal jî bi derkirina daxuyaniyan piştgirî ji serhildana xelkê Mehabadê kirin.

Hêjayî basê ye ku deqa daxuyaniya PDKÎ di vê derhqê de, di rûpela 2'ê de hatiye weşandin.

## Pêşmergeyekî kevnar yê PDKÎ koça dawiyê kir



Roja Çarşemî 20.05.2015 (30.02.1394), Ebdulrehîm Sewze naskirî bi Hacî Sewze, pêşmergê kevnar ê PDKÎ koça dawiyê kir û li goristana şehîdan li bajarê Koyê bi axê hate spartin.

Ebdulrehîm Sewze kurê Hacî sala 1329'an (1950) li bajarê Nodşe a Rojhilata Kurdistanê, di malbateke hejar û destteng de tê dinê, û piştî şoreşa gelên Îranê tevlî refên pêşmergên PDKÎ dibe, û di hêza Şaho de tê sazimandan, û heya roja dawiya jiyana xwe di hêz û organên cur bi cur ên weke hêza Şaho û hêza Samrend û Nexweşxaneya PDKÎ de erkên pêşmergatiya xwe bi rê ve dibe.

PDKÎ bi vê hêncetê, sersaxiyê dibêje hemû xizm û kesûkar û hevçeperên Hacî Sewze, û xwe di xem û kovana jidestdana vî pêşmergê kevnar de, beşdar dizane.

## Sekreterê PDKÎ û berpirsên wezareta Derve ya Almanyayê bi hev re civiyan



Kurdistan Media: Rêzdar Mistefa Hicrî, sekreterê giştî yê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê di gel karbidestên Wezareta Derve ya Almanyayê civiya.

Roja 15`ê Gulana 2015`an, Mistefa Hicrî sekreterê giştî yê PDKÎ û Hîwa Behramî, nûnerê PDKÎ li Almanyayê, seredana Wezareta Derve ya Almanyayê kirin û bi karbidestên wê wezaretxaneyê re civiyan.

Di vê hevdîtinê de, berpirsê Rojhilata Navîn ya Wezareta Derve ya Almanyayê, û berpirsê maseya Îranê ...
»»»» R: 4

**"Devberdan ji modela dewlet-netewe ji aliyê HDP'ê ve carê baseke teorîk e, û neketiye qonaxa pratîkê de".**
»»»» R: 5


**Ebdullah Hicab**

**Bidarvekirinên nepenî li Îranê û nîgeraniya NY**
»»»» R: 6



**Rewşenbîr yan jî xulamokên deshilatê**
»»»» R: 7



**"Dema ku hêzên PDKÎ ji Kurdistana Rojhilat vekişiyan ...".**
»»»» R: 8


**Helîme Elîzade**

**Li Kurdistanê her roj 4 jin dişewitin**
»»»» R: 9



## Sergotar

# Kurdistaniyan serî hilda

**Nahîd Husênî**

Mirina Ferînaz Xosrewanî di bajarê Mehabadê de, nerazîbûna akinciyên bajarên cur bi cur ên Kurdistanê lê ket. Li Mehabadê û Serdeştê xelk rijiyane ser kolanan, û digel hêzên rejîmê şer kirin.

Di bajarê Sine de, dukan û bazar hatin daxistin, û di bajarên din de jî xelkê bi awayên cur bi cur hevsoziya xwe eşkere kirin, ku çendîn kes hatin birîndar kirin û girtin. Gelo sedem çi bû ku xelk bi vî rengî daketin kolanan, û pevçûna bi hêzên rejîmê re berhema kîjan diyardeyî ye?

Di Komara Îslamiya Îranê de, sîstemên Dadwerî,Yasadanîn û Birêvebirî, tenê li ser kaxezê û bi nav serbixwe û ji hevdu cuda ne!.

Gellek caran em şahidê destêwerdana rêberiyê û beyta rêberî û nawendên ewlekariyê di nav karûbarên her yek ji wan sê deshilatan de bûn.

Bi awayekî ku bi sala ye ku ji hemû aliyekî re eşkere bûye ku di Îranê de, dasepandina wezîran bi ser dewletê de, û danîna rê û şûnan ji bo dem û Dezgeha Dadweriyê bûye diyardeyeke asayî.

Vêca berhema vê cure deshilatdariyê dirêjbûna valahiya di navbera deshilatdaran û hevwelatiyan e. Herwisa nebûna baweriya civatên xelkê ye bi tewahiya nawendên deshilatê.

Digel canemergbûna Ferînazê, hekî deshilatdarên bajaran, ku ji aliyê rejîmê ve hatine dasepandin, rûrast û rasterast digel xelkê baxivîbana, û soz û qewl daban ku di demeke kêm de, li ser vê pirsê behs û gengeşeyê bikin, bêguman xelkê bajar jî wê bêhna wan fireh bibûya.

Lê akinciyên Mehabadê dîtin ku deshilatdar di cihê berçavgirtina van riyan, bi berçavên wan hêzên teyar ji bajarên derdorê ve ber bi Mehabadê ve tîne, û bi tu awayî naxwaze ku dil û hesta wan ya birîndar qenc û derman bike, lewra neçar man ku di hemberî vê maf binpêkirina eşkere de, tenê rêçareya serhildan û qurbanîdanê hilbijêrin.

# PDKÎ: “Xelkê Kurdistanê di hemberî qedera xortên xwe yên fîdakar de bê helwest namînin”.

**Deftera Siyasî a PDK Îranê di pêxem sekinandina pêla nû ya girtin û binçavkirina hevwelatiyên kurd û herweha bi armanca serbestberdana wan girtiyên Kurd li Kurdistana Rojhilat de, daxuyaniyek nivîskî weşand. Ku eva jî deqa vê daxuyaniyê ye:**



**Hevwelatiyên rêzdar!**

**Civatên xweragir ên xelkê Kurdistanê!**

**Kom û civatên alîgirê mafên mirovan!**

Piştî serhildana vê dawiyê ya xelkê Mehabadê li dijî stemkariya rejîma Komara Îslamiya Îranê, û reftara kerametşikênane ya dest û pêwendiyên rejîmê di kurdistanê de, dezgehên Îtilaatî û ewlekariyê û hêzên din ên serkutkar ên rejîmê, ji bo rijandina kerb û kîna hertimî ya xwe bi ser meşvanan de, pêleke din ya berfireh ji şopandin û girtina xortên Kurd di bajarên Kurdistanê de rê xist, û di rojên borî de, çend sed kes ji xortên bajaran, bi tawana beşdarî di xwenîşandanan de girtin, û hukmên zalimane bi ser wan de sepandin.

Di vê derheqê de Deftera Siyasî ya PDKÎ tevî mehkûmkirina vê pêvajoya nû ji girtin û hepsîkirinan, xatircem e ku civatên xelkê Kurdistanê di hemberî qedera xortên xwe yên fîdakar de bê helwest namînin, û bi hêsanî bi ser de derbaz nabin. Digel vê yekê de jî daxwazê ji hemû rêkxirawên siyasî yên Kurdistan û rêkxirawên medenî û çalakên mafên mirovan dike, ku dengê nerizayetiya xwe, derheq çarenûsa girtiyan bilind bikin, û bi dana zanyariyên zêdetir li ser hejmara girtiyan û reftara hêzên serkutkar ên rejîma Îranê, digel bendkiriyan alîkar bin ji bo medyayîkirina reftara zalimane derheq neteweya Kurd, bi kom û civatên navneteweyî.

Di vê derheqê de, PDKÎ hewlên micid û berdewam dide, bo pêwendîgirtin digel kom û civatên navneteweyî û rêkxirawên berevankarê mafên mirovan û welatên xwedîpêgeh û xwedî nifûz, bi armanca zextxistina li ser Komara Îslamiya Îranê, li pêxema sekinandina pêvajoya şopandin û girtin û zindanîkirina xortên Kurd, û bo azadkirina wan girtiyên ku bi tometa rexnekirina rejîmê derheq bêhurmetî û kerametşikêniyên dest û pêwendiyên Komara Îslamiya Îranê rijiyane ser kolanan, wê hewlê bidin.

**Civatên Xelkê Kurdistanê!**

**Dom R:4**

# Birêz Nesrîn Qasimlo: “Melayên hakim di Îranê de bûne cihê şerm û rûreşiyê ji bo meseb û herweha welatê Îranê”.



**Nesrîn Qasimlû di nameyekê de nerihetî û bêzariya xwe li hember mirina biguman a Ferînaz Xusrewanî û rejîma Îranê nîşan da.**

Deqa nameya Nesrîn Qasimlû bi vî awayî ye:

Ew bûyera ku li hotel Tara ya bajarê Mehabadê de qewimî û mirina Ferînazê bi dû xwe re anî, eyankerê kakil û naveroka hikûmeta Îslamiya Îranê ye. Ew rejîma ku bi navê ol ve hikûmetê dike û îdeaya “berdewamî û nemiriyê” dike, destê gurûp û dardestên xwe ji bo kuştin û afirandina cinayetan vekirî hiştiye.

Ya rast ew e ku melayên hakim di Îranê de bûne cihê şerm û rûreşiyê ji bo meseb û herweha welatê Îranê.

Mixabin, taze tu kes nikare jiyanê bi Ferînazê bibixşîne. Ez jî tevî nîşandana hevxemiya xwe li ge malbata Ferînazê li dor canemerghiştina wê de, kerb û nifret û bêzariya xwe jî, ji rejîma cinayetkar a Komara Îslamî tînim ziman, û xwe jî bi şirîka xemên malbata Xusrewanî û xelkê Kurdistanê dizanim.

**Nesrîn Qasimlû, hevjîna nemir dr. Ebdulrehman Qasimlû**
**Parîs**
**12. 05. 2015**

# Beşa dawiyê ji gotûbêja Kovara Sivîl digel rêzdar Mistefa Hicrî sekreterê giştî yê PDKÎ

Birêz Mistefa Hicrî:

**“Bi tu awayî mebesta min ew nebûye ku bêjim Dr. Qasimlo kesekî tekrew bûye”.**



Birêz Mistefa Hicrî: “Bi tu awayî mebesta min ew nebûye ku bêjim Dr. Qasimlo kesekî tekrew bûye”.

**Sivîl: Di xwendina pirtûka “Nisko û dabiran” de, wisa dixûye ku ew pirtûk gellek bi parêz ve hatiye nivîsandin, di çendîn ciyan de tu bas ji bûyerên cuda cuda dikî, û amaje bi bikeran nakî, û dinivîsî ku navên wan li cem min parastî ne, tu ji bo dîrokê dinivîsî, çima ew parêz?**

**Bersiv:** Jiber ku digel wan hevalên ku cuda bûne, em di nav gotûbêjan de ne, û em dixwazin ku bi awayekî baş yek bigrin, lewra min nexwast ku ew nivîs bi awayekî be, ku bibe asteng di hemberî wan gotûbêjan de.

Herçend ku ew niha bi vê nivîsînê jî gellek nerehet in. Min xwastiye ku ew rewşa ku me gellek hewl daye ku aram be, cardin têk neçe, û ew pêwendiya ku me bi wan re hebûye berdewam be, da ku em bikarin gotûbêjên xwe bidomînin.

**Sivîl: Di nav partiyên Kurdî, û bi giştî di nav partiyên serkirde de, her tim serkirdeyên partiyan biryara yekalîker didin, bêguman Dr. Qasimlo û PDKÎ jî her bi vî awayî ne, lê eva ku tu dibêjî Dr. Qasimlo bi bê pirs û hevşêvriya Mekteba Siyasî, du qonaxên danûstandinan digel Îranê encam dane, ku dawî car bi terorkirina wî bi xwe bi dawî tê, gelo ew yek vê yekê nîşan nade, ku Dr. Qasimlo serkirdeyekî tekrew bûye, û di biryarên dawiyê de jî venegeriyaye bo Mekteba Siyasî?**

**Bersiv:** Min jêve ye ku hekî sekreter yan kesayetiyê yekem yê partiyê şaşiyek kir, nab ew yek bê teimîm kirin, jiber ku em hemû mirov in û di karên xwe de berbirûyê şaşiyan dibin, û renge pêngavên şaş jî hilgirin, lê ew yek nahê vê wateyê ku hemû pêngavên me şaş in.

Cudahiya Dr. Qasimlo di wir de bû ku bi awayekî giştî mirovekî demokrat bû, û digel Komîteya Nawendî û Mekteba Siyasî mijarên pêwendîdar bas dikirin, lê li ber hinek sedeman ku min di pirtûkê de qala wê kiriye, Dr. Qasimlo hate erkdarkirin bona vê ku di vê gotûbêjê de beşdar be, wî niyeteke pak hebû, bi awayekî lojîkî û siyasî bîr dikir, bîr ji vê dikir ku rejîma Îslamiya Îranê ku heşt salan digel Îraqê di şer de bûye, xisareke zaf ya malî û canî lê ketiye, û niha jî dest bi gotûbêjan kirine, kêşeyên xwe çareser kirine, ku wisa bû ji niha û şûnda Îranê hewcehiya wê bi avedankirinê heye, lewra ew jî hekî bi lojîkî hizir bike, dibe bikeve gotûbêjan di gel neyarên xwe, û digel wan li hev bike, û kêşeyan nehêle.

Di pirtûkê de min qala belgeyê jî kiriye, Komara Îslamiya Îranê pilaneke wisa darêtibû, û wisa nîşan dabû ku hekî Dr. Qasimlo bi xwe beşdar nebe, ew gotûbêj nikare dom hebe, Dr. Qasimlo jî jiber ku her di destpêkê de heta wê demê ku şehîd bû, hertim li ser vê baweriyê bû ku kêşeya me û Komara Îslamiya Îranê bi çekê çareser nabe, belkû dibe ku ji riya gotûbêjê ve be.

Ew li ser vê baweriyê bû ku rewşek pêk hatiye ku nabe em ji dest bidin. Herçend ku renge ew rexne bê ser wî, ku te bas kir jî.

**Sivîl: Ku wisa bû, cenabê te vê yekê, wekî belge ji bo dîktatorbûna Dr. Qasimlo nahesibînî?**

**Bersiv:** Ne, bi tu awayî mebesta min ew nebûye ku bêjim Dr. Qasimlo kesekî tekrew bûye.

**Sivîl: Beşeke zaf ji pirtûkê hatiye danîn bo bersivdana bi pirtûka Ebdullah Hesenzade, “Ezmûna Xebatê”. Bi awayekî eşkere bêje ku hekî ezmûna xebatê nehatiba nivîsandin, te wê pirtûka “Nisko û dabiran” nivîsandiba?**

**Bersiv:** Ne, hekî nehatiba nivîsandin, min jî pirtûka xwe nedinivîsand. Kak Celîl Gadanî di dema veqetiyanê de li ser sedemên cudabûnê nivîsand, min bersiv neda, lê ya ku Ebdullah Hesenzade nivîsandiye çewtkariya dîroka PDKÎ ye. Ku ez vê yekê wekî karekî gellek xirap dizanim. Em partiyên siyasî bedela vê ku zanyariyên rast bidin xelkê xwe, em çewtkariyan bikin.

Hekî kesekî din ji hevalên me bersiv daba, renge min jî bersiv nedaba, lê bi wan sedeman min erka li ser milên xwe zanî, ku karekî bikim ku endam û alîgirên PDKÎ bi giştî yekalî dadweriyê nekin. Sibê hûn wekî rojnamevan yan lêkolînvanek hekî li pey rastiyan bigerî, bila tenê axavtina aliyekî di ber dest de tunebe, lewra min pê baş bû, ku ew zanyariyên ku ez agehdar bûm, binivîsim, û di ber destên xelkê de hebin, û wê demê xelk dadweriya xwe bike.

**Sivîl: Di ciyekî pirtûkê de, bas ji vê dikî, ku piştî kongireya sêzdehemîn berî vê ku hevalên we cuda bin, pêşniyara vê yekê we kiribûn ku spasnameyekê ji bo Ebdullah Hesenzade binivîsin, lê piştre wî bi xwe şert û merc danîn. Wî got ku divêt tê de binivîsin ku wî yekrêziya PDKÎ parastiye, û rêbaza şehîdan domandiye. Lê hûn razî nebûn û we spasname nenivîsand. Gelo te jêve bû ku wî yekrêziya PDKÎ neparastiye, û rêbaza şehîdan nedomandiye, lewra razî bi vê daxwaza wî nebûyî?**

**Bersiv:** Di pirtûkê de min îşare pê kiriye, ku di rastî de, min ji tu serkirdeyekî din nebihîstiye ku spasname jê re bê nivîsandin, û ew bêje ku dibe ez bi xwe binivîsim, piştre jî dema ku heyeta Deftera Siyasî ji cem wî vegeriyan û hatin, wê demê em bi hev re bûn, kak Hesen Restgar û kak Mistefa Mewlûdî, ku niha jî digel hevalên cudabûyî ne, û wê demê herdu jî endamên Deftera Siyasî bûn, li ser vê mijarê axivîn, kak Hesen Restigar ew qas ji şert û merca Hesenzade nerehet bû, ku daxwaz kir em dev jê berdin, eva bû ku êdî em jê geriyan.

**Sivîl: Gelo niha tu Hesenzade hêjayî vê spasnameyê dibînî?**

**Bersiv:** Berî cudabûnê hekî ew yek ser girtiba, ez amade bûm ku bi xwe jê re binivîsim, ji bo wan xizmetên ku di nav refên PDKÎ de encam dabûn, herçend ku kêşe û cudahiya bîr û boçûnan me hebû, lê ez li ser vê baweriyê me ku ne di nav PDKÎ de, belkû di her partiyeke neteweyî de serkirdeyek dibe sedemkarê veqetiyan û cudahiyan, bê tu cudahiyeke hizrî û siyasî, tenê li ber berjewendiyên girûpî, min jêve ye kesayetiyekî wisa ne tenê bo hurmetgirtinê nabe, belkû dibe bikeve ber lomeyên xelkê. Min zêdetir ji temenê ciwaniya xwe di vê partiyê de derbaz kiriye, û min kêşe û metirsiyên zaf qebûl kirine, hemû ew yek nabe bibin hêcet ku em karekî bikin ku ew partiya şeq be, me hewcehî bi yekrêziyê heye, ne cudabûnê. Ew kêşeya bû ku Hesenzade pêk anîbû, û heşt sal e, em çi dikin, wekî xwe lê nahê.

**Sivîl: Di basa sedemên cudabûna hevalên we, piştî kongireya sêzdeyan de, tu bas ji sedemekê dikî, û wekî**

**karektereke sereke, û ne eşkere tu bi nav dikî. Çima te bi eşkere negotiye, û wisa bi ne eşkere te hêlaye?**

**Bersiv:** Di rastî de, heya niha jî bo min ne eşkere ye, û di vî warî de fakteke cihê qebûlkirinê ne di destê min de ye, û belge wisa nîşan didin ku kesek yan aliyek di vê cudabûnê de dest hebû, li gora wan belgeyên ku di pirtûkê de min bas kirin.

Lê li cem min eşkere nebû, lewra min nexwast ku bêjim, ew kes, yan ew alî bûye, min hez nedikir ku tiştekî bêjim ku min guman li ser hebe. Di vê pirtûkê de min hewl daye ku her çi min dîtiye bi awayekî rast û dirust bixim ber çavên xelkê.

**Sivîl: Niha ku navbera we digel hevalên cudabûyî baş e, û gotûbêj di navbera we de heye, ji bo yekgirtinê, we jêve nine ku dema bilavkirina pirtûkê demeke xirap bû, û zirarê li hewlên we ji bo yekgirtinê dide?**

**Bersiv:** Wan hevalan ez di vî warî de rexne kirime, renge xelkên din jî min rexne bikin, min rêz bo rexneyên xelkê heye. Eva pirtûkek e, ku heq e xelk boçûna xwe li ser bêje.

Min bîr jê kiriye û em gotûbêjê dikin û armanca me yekgirtin e, lê niha ku Hesenzade ew tişt di pirtûka "Ezmûna xebatê" de nivîsandine, hekî biryar be ez bersiv bidim, dibe kengî bersiv bidim?.

Xwe hekî me yek girt, wê demê ez nikarim her bas jî bikim, jiber ku cardin kêşe di navbera me de wê pêk bên, renge dîsan bibe sedema dudesteyî û dudiliyê, û çêbûna nexweşiyan, ku wisa bû hewce ye ji ber yekgirtinê ez wan rastiyan raxim ber çavên xelkê, da ku xelk bi çavekî vekirî, vê yekê bibîne.

Herçend ku min pêşbîniya vê yekê jî dikir ku ew pêşwazî nekin, lê min ku biryar daye binivîsim, min jêve ye ku niha baştir e ji vê ku piştî yekgirtinê ez binivîsim.

**Sivîl: Di pirtûkê de bas ji vê dikî, ku Hesenzade kekê Baba Elî pêşniyar dike, ji bo sekreteriya PDKÎ, jiber ku wisa dibîne ku ew kesayetiyekî lawaz e, û her bi xwe di pişt perdeya sekreteriya rasteqîne de dibe, niha ku Xalid Ezîzî sekreterê PDK ye, te jêve ye ku di pişt perde de Hesenzade sekreter be, lewra pêngavên yekgirtinê hêdî ne?.**

**Bersiv:** Ew qas ku ez agehdar bim, ku renge zanyariyên min jî tewaw nebin, Ebdullah Hesenzade karekterekî çalak e di nav PDK de. Lê wekî destpêkê nemaye, jiber ku hêdî hêdî beşeke zaf ji xelkê wan jî niha hest bi vê yekê kirine ku ew cudabûn pêngavek rast nebû, û xizmeta tevgera Kurd nekiriye.

**Sivîl: Tu di pirtûkê de bas ji vê dikî ku di kongireya deh de tu li dijî vegeriyana hevalên rêberatiya şoreşger bûyî, bo nav hizbê, ji ber ku te bawerî pê nebû, ku wisa bû niha heman girûpê piştî vê ku veqetiyanek din di nav PDKÎ de encam dan, çi bawerîyek te bi wan heye ku vegerin nav PDKÎ de, û di pêşerojê de duberekî pêk nehê? Jiber ku te nivîsandiye berî 20 salan te ew bi başî nas dikirin û te bawerî bi wan nemabû.**

**Bersiv:** Di karê siyasî de bawerî ne gellek şert e, mirov hez dike ku baweriyê bi dest bîne, lê ew yek dibe di navbera kiryar û rabin û rûniştinê de pêk bê, lê ya ku ez û PDKÎ anîne ser vê baweriyê ku em hewl bidin bo yekgirtinê, ya yekem: Hewcehiya siyasî ya îro ya herêm û Îranê ye, ku vê yekê dixwaze partiyên Rojhilat bedela veqetiyanê pêvajoya yekgirtinê bigrin pêşiya xwe, jiber ku guherînkarî gellek bilez in, ji ber ku hekî em yekgirtî û bihêz nebin, em nikarin di guherînkariyan de xwedî rol bin.

Ya duyem: Beşeke zaf ji wan hevalên ku cuda bûne gihîştine vê encamê ku karê wan şaş bûye, û renge em jî şaş bûne, zêdetir min hêvî bi vê yekê heye, ku em ji şaşiyên xwe têgihîştine, û bo berjewendiya takekesî û girûpî, nabe em PDKÎ ker (şeq) bikin, lê digel vê yekê jî cudahiya boçûnan û lêkdaneweyan wê her hebe.

**Doma R:1**



û berpirsê beşa mafên mirovan ya wê wezaretxaneyê jî tê de beşdar bûn. Di vê hevdîtinê de pirsa Kurd li Kurdistana Rojhilat, rewşa siyasî û aborî ya Îranê, dan û standinên di nevbera welatên 5+1 bi rejîma Îslamî re, û rola rejîma Îslamî a Îranê li kirîzên Rojhilata Navîn de naveroka bas û gotûbêja wan bû.

Li dor Kurdistana Rojhilat, Sekretrê giştî yê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê îşare bi nerazîbûnên vê dawiyê ên xelkê Kurdistanê û bi taybetî her du bajarên Mehabad û Serdeştê kir û da zanîn ku: "Zext û givaş û zordariyên rejîmê li hember kurdên Rojhilat di astekê de ye, ku her dema derfet ji xekê re pêk were, dadikevine ser şeqaman û nerazîbûn û nefreta xwe li dijî rejîmê didin nîşan dayîn".

Piştî guhertina bîr û rayan, şanda karbidestên Almanî spas û pêzanînên xwe ji bo wê hevdîtinê nîşan da. Ji aliyê din ve, birêvebirên rojnameya "BÎLD" a Almanî jî bi fermî sekreterê Partiyê bo ofîsa xwe vexwendin, û piştî serdanê hevpeyvînek jî pê re pêk anîn.

**Sivîl: Ew hevalên we piştî kongireya sêzde berî vê ku cuda bin, çendîn mercên giran hebûn, bona vê ku bi hev re kar bikin, û cuda nebin, wê demê li ber berjewendiyên hizbê, gellek ji wan mercan we qebûl kirine, xwe mercên niha yên PDK ji mercên wê demê siviktir in, çima pêngav ew qas hêdî têne hilgirtin?**

**Bersiv:** Ez tenê wekî xwe daxivim, li cem me nîgeraniyek heye. Jiber ku pêştir yekgirtin hebûye, û têk çûye. Ezmûna me berbirûyê têkçûnê bûye, em dixwazin berî yekgirtinê li ser hemû kêşeyan baxivin, û hemû kêşeyan çareser bikin, û tu kêşeyeke me nemîne. Wan bi xwe jî nîgeranî hene, zêdetir ew hûrdekarî ne ku dem girtine.

**Sivîl: Gelo kêşeya nav heye, ew hûrdekarî ew e?**

**Bersiv:** Ne, pirsa nav nine. Wan di civîne du Mektebên Siyasî de qebûl kirine, ku hekî yekgirtin hebe, li jêr navê PDKÎ de, û bi vê arma me dibe. Lê di hemû gotûbêjekê de hûrdekarî çareserkirina wan zehmetir e, û demeke zêdetir dixwaze.

**Sivîl: Di partiyên Kurdî de, ku her wekî me bas kir, serkirdeyên wan bi terorkirinê yan mirinê, ji serkirdayetiya wan têne dûrxistin, li Başûr piraniya xelkê bawerî bi vê aniye ku Partiya Yekgirtû yekem partiya Kurdî bûye ku emîndarê giştrî dev ji posta xwe berdaye, her bi xwe jî bas ji vê yekê dikin, lê kêm kes vê yekê dizane ku cenabê we yekemîn sekreterê partiyeke Kurdî bûyî, ku berî 20 salan bo berjewendiya partiya xwe we dev ji posta xwe berdaye, û heya sê kongire wekî cihgir yan endameke Deftera Siyasî hûn berdewam bûn, heya piştre ku wekî sekreter hatin hilbijartin?**

**Bersiv:** Ez jî her wisa dibînim, û eşkere ye, û xelk hemû dizane. Lê şert nine, her tiştî ez bi xwe bêjim.

**Doma R:2**

Herçend ku ew hereketa biwêrane ya xelkê bajarê Mehabadê û hevsoziya bajarên din ên Kurdistanê li Sine, Merîwan û Bokan, Serdeşt, Bane Seqiz û ....hwd dengdaneke cîhanî û herêmî lê ket, û gellek aliyên bi bandor helwesta biwêrane ya xelkê Mehabadê û hevsoziya bi cî ya xelkê bajarên din ên Kurdistanê bilind nirxandin, û ew reftara dest û pêwendiyên rejîma Îranê mehkûm kirin, û daxwaza cezakirina tometbaran kirin, lê her wekî hate dîtin wekî hertim, rejîmê bi anîna hêcetên ne di cihê xwe de, tawanbar derbaz kirin, û dest kirin bi girtina xortên neteweya Kurd ku berevanî ji behayên mirovî kirine, û kerameta mirovî ya xwe parastine.
Cardin em daxwazê ji kom û civatên mirovdost û rêkxirawên siyasî û medenî û azadîxwazên Îran û Kurdistan û bi taybetî çalakên navxwe yên welat û tewahiya xortên neteweya Kurd dikin ku bi awayekî berfirehtir û bi kiryartir ji bo azadkirina bendkiriyan û zextxistina li ser Komara Îslamiya Îranê, û bidawîanîna bi pêvajoya şopandin û girtina xortên Kurd tekoşînê bikin û xwediyê helwestên hejî bin.

**Azadî bo girtiyan**

**Serkevtin bo xortên neteweya Kurd**

**PDKÎ**
**Deftera Siyasî**
**28.02.1394**
**18.05.2015**



**Ebdullah Hicab**

## “Devberdan ji modela dewlet-netewe ji aliyê HDP’ê ve carê baseke teorîk e, û neketiye qonaxa pratîkê de”.

**Hilbijartinên parlemanî di Tirkiyê de, çiqas bala medyayên herêmê bo aliyê xwe rakêşabe, û bibe cihê gengeşeyê di nav çalakên siyasî û şirovekaran de, ew qas jî mijara derbazkirin yan nekirina astenga %10 ji aliyê HDP’ê ve bala medyayan bo aliyê xwe rakêşaye, û hizra şirovekarên siyasî bi xwe ve mijûl kiriye. Me jî wekî Rojnameya Agirî bi hewce zanî ku di vê derheqê de, digel birêz Ebdullah Hicab çalakê siyasî hevpeyvînekê pêk bînin, û zanyariyên zêdetir li ser vê hilbijartinê bidin xwendevanên Agirî. Hêjayî basê ye ku boçûnên navbirî boçûnên PDKÎ yan rojnameya me nînin, û boçûnên wî yên şexsî ne.**

**H: Şehab Xalidî**

**Pirs: Biryara HDP’ê wekî partî, derheq beşdarîkirin di hilbijartina Tirkiyê de, hûn çawa dinirxînin?**

**Bersiv:** Gellek spas ji we re bo dana vê derfetê bi min. Hilbijartina çavnihêrkirî ya Tirkiyê, hilbijartineke girîng e û di rewşekê de bi rê ve diçe, ku hem welatê Tirkiyê û hem jî tevgera Kurd û hem jî Rojhilata Navîn ji qonaxeke hestiyar re derbaz dibe. Lewra ji bo xelkê Tirkiyê û Bakûra Kurdistanê girîng e ku kîjan alî di parlemênta Tirkiyê de dibe xwedî biryar.

HDP bi biryara beşdarîkirina di hilbijartinan de, wekî partiyeke siyasî pêngaveke pirr ji rîsk lê biwêrane hilgirt, rîsk tê de ye ji berku HDP dibe %40 zêdetir ji wan dengan ku di hilbijartina pêşîn de bi dest anîbû, bi dest bixe, da ku bikare astenga %10 derbaz bike û here parlemêntoyê. Lê biwêrî dixwaze ku ew qas bawerî bi çalakiyên xwe hebe, ku armanceke bi vî rengî diyarî bikî, û xatircem bî ku dikarî armanca xwe bipêkî. Ji bo derbazkirina astenga %10 hewcehiya HDP’ê bi tevgereke bilez ya beşeke zêdetir ya dengderan heye. Dengê Kurdên Rûniştiyê Ewropayê, dengê civaka Kurdî ya rûniştiyên derveyî Kurdistan, dengê jinan, û dengê kes û aliyên demokrat ên Tirkiyê û ji hemiyê girîngtir dengê beşa muhafizekar ya civaka Kurd ji bo serxistina HDP gellek girîng e. Renge darêjerên stratejiya hilbijartinê ya HDP’ê jî hest bi vê hewcehiyê kiribin, lewra vê carê rê




dane ku komek dengê cuda bibin berbijar bo vê hilbijartinê. Di Kurdistanê de, ji hinek kesayetiyên olî yên wekî Pro. Qedrî Yildirim û Altantan ve bigre heya digihîje kesayetiyên neteweyî û xweşnav ên wekî Leyla Zana û Osman Baydemir, ji sosyalîstên çalak ve bigre heya digihîje kesayetiyên muhafizekar û lîberal, ji jinan û ciwanan ve bigre heya digihîje wekhevîxwazên dûrketî ji pîvanên civakî yên heyî (hevregezbaz), ji Kurdên Kurd ve heya çepên Tirk, vê carê HDP’ê komeke berfireh ya kesayetiyên naskirî xistin nav lîsteya berendamên xwe de. Her ew yek jî egera jêhelbirina dengên wan zêdetir dike, lê eva ku gelo wê bigihîne %10 yan ne, dibe heya 08.06.2015’an em çaverê bin.

**Pirs: Hekî HDP’ê nekarî astenga %10 ya dengan derbaz bike, wê berbirûyê çi astengiyan bibe, û berevajî hekî rêjeya diyarîkirî ji bo derbazkirina berbenda hilbijartinê bi dest bixe, wê çi rû bide?**

**Bersiv:** Di siyaseta Bakura Kurdistanê de, dergeha xebata yasayî hatiye vekirin, û HDP yan her rêkxiraweke din dikare li gora daxwaziyên gelê Kurd ji riya kanalên fermî ên siyasetê ve, bikeve nav rikeberiya xebata siyasî de ji bo bidestxistina mafê neteweyî. Çûna HDP’ê ji bo parlemêntoyê gellek girîng e, lê sernekevtina di vê hilbijartinê de nahê wateya bidawîhatina hêviyên Kurdan. Hekî Kurd di vê hilbijartinê de, nekarî ku daxwaziyên xwe bibe parlemêntê, dengên Kurdistanê dibin yên AKP’ê, û pêgeha vê partiyê di dariştina siyaseta Tirkiyê de qahîmtir bike, lê AKP jî dizane ku zewtkirina dengên HDP’ê wekî partiyeke siyasî wê rewayiyê nade wê, ku HDP’ê û bandora rêzdar Ocelan di siyaseta Kurd di bakura Kurdistanê de berçav negire, lewra rola HDP’ê li derveyî parlemêntê de jî, roleke çarenûssaz e di Bakura Kurdistanê de.
Hekî HDP’ê nekarî ku rêjeya dengên xwe ji dengên Demîrtaş yên di dema berendametiya ji bo serkomariyê de zêdetir bike, dibe hemû qewareya HDP’ê pêdeçûnê bi ser karê xwe de bike, û bîr ji guherîna bernameya siyasî ya xwe û darêtina stratejiyeke nû bike, wate rê û şopekê hilbijêre ku bikare raya giştî ya Kurdistanê bo aliyê xwe rakêşe. Pêvajoya xwe nûkirinê, û guherîn û pêdeçûna bi ser bername û stratejiya HDP’ê, di dema serkevtina di hilbijartinê de jî her hewce ye, lê di dema sernekevtinê de hewcehiyeke sedî sed e.

Bê serkevtina HDP’ê, derfet tê pêkanîn ku pirsa Kurd bixin ber destên nawenda herî bilind yên biryardana welat, û wê bixin pêvajoya çareseriyê de. Ku wisa bû serkevtin yan sernekevtina HDP’ê bo vê rêkxirawê bi xwe, nabe asteng, lê çûna HDP’ê bo parlemêtê bo bileztirkirina pêvajoya pirsa Kurd di bakura Kurdistanê gellek girîng e.

**Pirs: Çima Erdoxan îdia dike ku di Tirkiyê de kêşeya Kurd tuneye?**

**Bersiv:** Erdoxan siyasetvanekî popolîst e, ku siwarbûna şîpelan ji aliyê wî ve, ji pêbendbûna bi binemyan girîngtir e. Ew Kurdan wekî netewe yan heta kêmaniyek nabîne, belkû Kurdan wekî komek dengder dibîne ku bi piropagendeyên xwe, dixwaze wan razî bike ku dev ji xwestekên xwe yên sereke ku mafê neteweyî ye berdin. Ji dîtingeha wî ve, ti cudahiyek di navbera vê zulm û stema ku li Kurdan hatiye kirin, û ew astengiyên ku ji bo çalakiya hêzên mesebî pêk hatibû, tuneye.

Wate navbirî qedexekirina leçikê, û bêdengkirina deng û zimanê neteweya Kurd wekî yek dibîne, lewra gellek caran radigehîne ku qedexeya leçikê hatiye rakirin, û kurd jî dikare ku bi zimanê xwe baxive, bê vê ku daxwaza bi fermî nasîna mafê xwe bike.

Ji aliyekî din ve hewcehiya Erdoxan bi dengê xelkê muhafizekar û nasyonalîstên Tirk heye. Lewra dixwaze ku bi manorên xwe hem dengê beşek ji civaka Kurd bi dets bîne, û hem jî dengê Tirkên muhafizekar ji dest nede.

**Pirs: Erdoxan di mîtînga bajarê Wanê de ragehand ku tenê ew nûnertiya Kurdan dike, ne tu aliyekî din, hûn vê helwestê çawa dinirxînin?**

**Bersiv:** Ew axivtineke nakok û neteba ye, digel siyaseta ragehandî ya wî bi xwe jî, ku dibêje di Tirkiyê de pirsek bi navê pirsa Kurd tune ye. Hekî di welatekî de, neteweyekê pirs yan daxwazî tunebe, êdî wekî pêkhate nahê nasîn û hewcehiya wê bi nûneran ji bo pêkhateyê bi xwe nabe, lewra Erdoxan bi xwe jî bawerî bi vê axivtinê nine, jiber ku her nûnerê wî ne, ku digel birêz Ocalan diyalogê dikin, digel şanda Îmraliyê bi fermî dirûnên û daxwaz ji birêz Mesûd Barzanî dikin ku giraniya xwe li ser Kurdên Bakura Kurdistanê bixe ger, da ku pêvajoya siyasî ji riya xwe

# Bidarvekirinên nepenî li Îranê û nîgeraniya NY



Arif Vêlzî

**Binpêkirina mafên mirovan bi hemû şêwe û aliyên xwe ve, yek ji wan mijarên hertim girîng û sereke bû ku bi dirêjahiya dîroka bidestvegirtina deshilatê ji aliyê rejîma Îranê ve, û guherîna rejîma dugm ya paşayetî bo rejîma dugm ya wilayeta Feqîf, hertim nawend û rêkxirawên berevankarê mafê mirovan, û ragehandinên biçûk û mezin yên cîhana pêşketî, li ser asta navxwe û derve bi xwe ve mijûl kiriye.**

Di Îrana li bin deshilata Komara Îslamiya Îranê de, hertim ferq û cudahiya neteweyî, regezî û ayînî li serveyî hemû binpêkariyên rejîmê ve bûye, û ji bo pêkana armanca peyakirina siyasetên dijî mirovî ên xwe, hertim azadiya ayînî û mesebî, azadiya ramanê, mijarên girêdayî bi neteweyên cuda cuda yên Îranê, xwepêşandanên aştîxwazane, azadiya rojnamegerî û ...hwd, wekî hêla sor û gefa li ser deshilata nûnerê Xwedê li ser erdê hesibandiye, lewra bi awayên herî tund bi girtin û îşkence û birîna endamên laşê mirov û bidarvekirina li cihên giştî de, bersiva xelkê dane û heya di vê pêxemê de dest ji bidarvekirina zarokan û nûciwanan jî neparastine.

Ya ku heya niha eşkere ye, û me dîtiye, zêdebûna rêjeya bidarvekirin e di hikûmetên yek li pey yekê di Îranê de.

Serbarê qewl û sozên serkomarên li pey hev yên wî welatî di dema bangeşeya hilbijartinan de, hertim piştî bidawîhatina piropagendeyan, û eşkerekirina bi nav encama hilbijartinan dîsan bedela dana azadiyên siyasî û medenî, jêhelçûna rêjeya girtin û bidarvekirinan berçavctir bûye, û gihaye astekê ku nerizayetî û dijkiriyara nawendên mafên mirovan lê ketiye, û bi dehan carî li ser asta navneteweyî û rêkxistina mafên mirovan û bi taybetî Rêkxirawa Lêborîna Navneteweyî bi awayên herî tund hatiye mehkûmkirin.

Eva di demekê de ye ku nawend û rêkxirawên cîhanî yên mafên mirovan çendîn caran bi belge ve selimandine ku piraniya herî zaf ya wan kesan ku li jêr navê bazerganî bi madedeyên hişber de, di Îranê de tênê bidarvekirin, çalakên siyasî û ayînî û rojnamevan in.

Her di vê derheqê de Ehmed Şehîd reporterê taybet bi mafên mirovan a Îranê di NY de, di dawîn rapora xwe de derheq rewşa mafên mirovan di Îranê de, ku di 09.04.2015'an di Jinevê de hate bilavkirin, serbarê vê ku rewşa mafên mirovan di Îranê de, û zêdebûna rêjeya bidarvekirinan di Îranê de bi giştî û bidarvekirinên serveyî yasayê, bi taybetî di çend hefteyên borî de pirotesto kir, ragehand ku di piraniya bidarvekirinan de, nawendên fermî yên ser bi Komara Îslamiya Îranê tu zanyariyek li ser wan kesan ku tênê bidarvekirin bilav nekirine, ew jî tê vê wateyê ku beşek ji wan kesên ku bi awayekî nepenî tênê bidarvekirin, eşkere nine ku kî ne, û bi çi tometekê tênê bidarvekirin û rêjeya wan çiqas e.

Her di vê raporê de hatiye ku di sala 2014'an de, 753 kes hatine bidarvekirin ku tometa piraniya wan bikaranîna madeyên hişber hatiye ragehandin, û nav û zanyariyên takekesî yên %60 ji wan nehatiye eşkerekirin, û tewaw bi nepenî û bê agehdariya malbatên wan hatine bidarvekirin, û ji vê rêjeya ku navê wan jî hatiye eşkere kirin, 18 kes ji wan zarok bûne, û temenê wan di bin 18 saliyê de bûye.

Herwisa tenê di deh hefteyên destpêka sala 2015'an de, 252 kes ji wan hatine bidarvekirin ku beşek ji wan di cihên giştî û li ber çavên xelkê hatine bidarvekirin.

Di beşeke din ji rapora Ehmed Şehîd de hatiye ku beşek ji wan kesên ku di bin navên madeyên hişber de hatine bidarvekirin, hejiyê bidarvekirinê nînin, û li gora yasayên navneteweyî tawanên wan wekî tawanên mezin nahêne hesibandin, û nabe bêne bidarvekirin.

Hevdem digel vê yekê jî rêkxirawa Lêborîna Navneteweyî, di dawîn serjimêriya salane ya xwe de ku di 03.04.2015'an de, derheq sepandin û birêvebirina cezaya bidarvekirinê li ser asta cîhanê bilav kir, ragehand ku rêjeya herî zêde ya bidarvekirinan li ser asta cîhanê ji aliyê Komara Îsamaiya Îranê ve bi rê ve çûye.

Her di vê derheqê de, Kirîstof Hîns karnasê NY bo karûbarên bidarvekirinên bê sînor derheq wan îdamên ku di Îranê de, û li derveyî çarçoveyên mafên mirovan de bi rê ve diçin, hişdarî da, û daxwaz ji Komara Îslamî kir ku bilez pêvajoya bidarvekirinan ragire, û vê cezayê di yasayê xwe de derxe. Herçend derheq keysa etomî û pirograma navikî ya wî welatî wisa dixuye ku Îran dikeve qedeman û serî bo daxwaziyên Rojava ditewîne, lê wisa dixuye ku derheq binpêkirina mafên mirovan di navxwe de, ku piştî keysa etomî xala herî sereke ya cihê nakokiyê di navbera Rejîma Îranê û welatên Rojava û ji hemiyan girîngtir Amerîka ye, zexta navxweyî zêdetir bike bona vê ku kes ji xwe nebîne ku liv û tevgereke wisa bike ku bêhna dijberkirina rejîmê jê bihê. Wekî wan aloziyên ku di çend salên borî de li Ehwaz û Belûçistan û Kurdistan , û ya herî taze jî li Mehabadê û piştî can ji destdana Ferîna Xosrewî rû da, û xelkê nerazî bi awayên herî tund ketin ber xezeb û kîna dar û desteyên wilayeta Feqîh û serbazên Îmamê Zeman.

---

nederkeve. Ku wisa bû hekî Erdoxan hemû dengên Kurdistanê jî bi dest bixe, nikare nûnertiya gelê Kurd bike, jiber ku wî bawerî bi hebûna Kurdan nine.

**Pirs: Hûn rola HDP'ê di hişyarkirina neteweyî de çawa dinirxînin, û gelo we jêve ye ku vê partiyê kariye ku hesta Kurdan bi pirsa neteweyî ve girê bide?**

**Bersiv:** Rexneyeke zaf li HDP'ê bi giştî û tevgera Kurd di bakura Kurdistanê heye ku li ser hêla neteweyî nemaye, û pişt li daxwaziyên mêjîn ên Kurdan di bakura Kurdistanê de kiriye. Ew boçûna bi taybetî ji aliyê hinek hêzên siyasî di bakura Kurdistanê ve tê bihêzkirin. Min jî gazinde li HDP'ê hene, ku di biyaveke siyasî de, carina raya giştî ya Kurd bi taybetî li derveyî Bakur li ber çav nagire, lê ew rexne nahêne vê wateyê ku ew partî û bi giştî tevgera Kurd li bakur hêla neteweyî bi cih hêlaye.

Modela çareseriya HDP'ê û ew rêbaza ku Ebdulla Ocalan berçav digre, çareseriyê di çarçoveyeke cudatir ji ya berê dibîne, û devberdan ji modela dewletnetewe carê baseke teorîk e, û neketiye qonaxa pratîkê de.

Eva jî modeleke siyasî ye ku ji dîtingeha wan ve çareseriyeke demokratîk tîne. Eva dikare cihê behs û gengeşeyê be, lê xwediyê vê hizrê ji hêla neteweyî dûr naxe. Ku wisa bû bi raya min rola HDP'ê di ber bi pêşvebirin, û bihêzkirina hizra neteweyî de, gellek girîng e. Mîtîngên vê partiyê bi marşa "Ey Reqîb" bi rê ve diçin, daxwaziya wan ya sereke çareseriya pirsa Kurd e, û piştevanîkirina ji Rojavaya Kurdistanê şahid in bo vê dîtingehê.

**Pirs: Erdoxan gotineke naskirî heye, ku îdia dike wî rê daye pêşmergeyan ku herin Kobanê, û derseke jibîrnekirî bidin DAÎŞ'ê. Gelo rastî ew yek daxwaz û siyaseta AKP'ê bû, yan jî di bin zexta civaka navneteweyî û Kurdan de serî bo çûna pêşmerge bo Kobanê tewandin?**

**Bersiv:** Erdoxan ew gotin jî heye ku digot Kobanê wê bişkê, yan digot şervanên Kobanê terorîst in, û digot çima ew qas bas ji Kobanê tê kirin, lê bas ji Helebê nahê kirin, ew nikare fîdakarî û hizûra pêşmer di çepera bergirî ji Kobanê, bike deskevta xwe. Erdoxan ji bo şikandina Kobanê pilan hebû, û hêviya serkevtinê bo Kobanê nedixwast. Çûna pêşmerge tenê di encama hevbendiya navneteweyî û îradeya serokatiya Herêma Kurdistana Başûr û li jêr zexta navneteweyî de giha encamê.

**Pirs: Daxwaziya we ji Kurdên Bakura Kurdistanê di vê qonaxê de, û qebûlkirina vê rîskê ku HDP'ê kiriye çiye?**

**Bersiv:** Ez hertim li ser vê baweriyê me ku tevgera Kurd di Bakura Kurdistanê de, tevî vê îradeya qahîm ya xwe hewcehî bi pêdeçûneke micid di şêweyên kar û siyasetên xwe de heye. Ew dikarin bi reformên siyasî, zêdetir derî ji bo beşa lîberal û kevneperest ya civakê vekin, da ku bi hêz û îradeya xwe beşdariyê di siyasetê de bikin.

Hêviya min serkevtina HDP'ê ye û min jêve ye ku hekî Bakura Kurdistanê bi amadeyiyeke zêdetir ve here ser sindûqên dengdanê, dikare dergehekî nû bi rûyê siyaseta Kurdî de veke.

HDP'yeke bihêz di parlemênta Tirkiyê de dikare bibe palpiştеke bihêz bo çareseriya pirsa Kurd û bi destûrîkirina mafên neteweyî di yasaya giştî ya pêşeroja Tirkiyê de.

# Nerîna Lîderan


Hacî Mehmûd

**“Dema wê hatiye ku em dewleta kurdî ava bikin”.**


Qiliçdaroxlo

**“HDP wê bikare benda %10 derbas bike”.**


Nêçîrvan Barzanî

**“Bexda rêkeftinê binpê bike, çareyên din hene”.**


Obama

**“Emê sînorekî ji kilora Sûriyê re deynin”.**

## Rewşenbîr yan jî xulamokên deshilatê



**Keyhan Yosifî**

Hinek kes bi şaşî, û bi çend sedeman dibûne qehremanê netewe, û berevankarê mafê gel. Di vê navberê de jî gellek aliyên Kurdî wate partiyên Kurdî têrîbonên xwe kiribûn havînewarê wan kesan, û hem ji têrîbona wan partiyan ve bi hizra xwe bergirî ji mafê gel dikirin, û hem jî di navxwe ya welat de, ji riya terîbûnên rêpêdayî ve xwe derdixistin?

Gellek caran jî wan bi nav qehremanan bas ji dîrokê jî dikirin, û di tewahiya bûyerên salên borî yên Kurdkuştin û qirkirina xelkê Kurdistanê û paşvemana aborî û hebûna rewşa ewlehiyê, girê didan bi xebatkarên Kurd ên demên şerê dasepayî bi ser Kurdistanê, û partiyên Kurdistanî, bi bê vê ku biwêrin deshilata rejîmê tawanbar bikin. Ew kesane naznavê rewşenbîr û êlîtan li ser xwe danîn, û bi gotinekê xwe kiribnûn kincsorê pêşiya leşker.

Kuştina bi guman ya keça Mehabadî ya ciwan, û serhildana xelkê Mehabadê û piştgiriya xelkê Kurdistanê bi tewahî, bedela vê ku piştgiriya wan êlîtan pê re be,lê kete ber rexne û lomeyan, û heya êrîşî ser xwenîşanderan kirin, û hêcet anîn bo hêzên serkutkar yên rejîmê, û dîsan jî tometbarkirina partiyan. Têgeha rewşenbîr û erkên wê wisa dixuye ku li cem me rojhilatiyan wateya wê guhertin bi ser de hatibe!.

Reweşenbîr di hemberî deshilata serberedayî û zalim di her astekê de disekine, û dibe deshilatê rexne bike, ew nûner û peyamhînerê rastiyan e di hemberî her deshilatekê de, û di her astekê de be, dijberiya serberedayiyê dike.

Erkek û karek ku digel pîşeya rewşenbîrên me gellek cuda ye, piraniya rewşenbîrên Kurd bi taybetî di Rojhilata kurdistanê berî vê ku li pey heqîqetê de bin, sergerdan in di nav dem û dezgehên deshilatê de, û nan û pile û paye jê re girîng in. Rewşenbîran jî wekî tewahiya tex û qatên civakê xwast û hewcehiyên wan hene, û deshilat jî bi tewahî ji vê rastiyê têgihîştiye. Tirs, pere, pile û paye û ...hwd, ew find û fêl in ku deshilat bi kar tîne ji bo kedîkirina




rewşenbîran.

Di rastî de ew rewşenbîr xwediyê wê deshilatê nînin, ku bikarin bandorê li ser hikûmetê danên, û eva ew in ku dikevin bin bandora deshilatê, û lewra jî deshilat di baştirîn forma xwe de ji wan digere, da ku mijûlî karê lêkolîna li ser deshilatê bin.

xeyidîna kesên wekî Rehîm Ferehmend, Ebdullah Ebrîşemî, Selah Xedîw, û çend kesên xuya yên Mehabadî, û rexnekirina meşvanan, û tometbarkirina wan û girêdana nerizayetiyan bi partiyan ve, bêy vê ku tu sedem û belgeyek di ber destên wan de be, û eva ku ew bûne destrastê rejîmê, û herwisa rondikrijandina wan ji bo hikûmetê, û ji bo xwediyên sermayeyan di vî bajarî de, gelo dikare çi wateyek hebe, ji bilî vê ku ew jî dixwazin ku mil bi milê batom û çek bi destên deshilatê bi awayekî din koşka deshilatê biparêzin, gelo ew kesane ku xwe wekî rewşenbîr û xemxorê gel û welat dizanin, çima ji xwe napirsin ku tometbarkirina nerewa ya meşvanan, wateya parêzgarî ji xak û gel û nîştiman e, yan hikûmeta dagîrkar?.

Gelo ew vê pirsyarê ji xwe dikin ku dehsilat berhemhînerê tundûtîjiyê ye, yan xelkê?. Meşvanên medenî çima bi çekên saçmeyî bêne birîndarkirin, ew jî di demekê de ku bi gotina berpirsyarên rejîmê bi xwe, diruşmên meşvanan li dijî deshilatdarên hikûmetê nebûne, û rûyê wan li xwdiyê hotelê bûye.

Ferehmend û Ebrîşemî di axivtinên xwe de nîgeranê jidestçûna derfeta sermayedariyê li Mehabadê ji aliyê hikûmetê ve bûn, gelo ji xwe dipirsin ku rejîmê di heyama wan hemû salan de çi sermayedanîneke bingehîn di Kurdistanê de kiriye, ku niha êdî nexwaze bidomîne? Gelo çima tenê di Kurdistanê de, bi sedema meşekê ve, dibe pêvajoya sermayedanîna hikûmetî paş bikeve? Di Îsfehan û Terwrêz û Şîrazê çima wisa nebû? Ew bajar jî di heyamên derbazbûyî de, şahidê meşên aram û ne aram bûn, xemxorên xwediyê hotêlê, û xemxorên deshilatê çima di hemberî wan hemû zextên ku li ser xelkê hene, bêdeng in? Ebrîşemî ku nîgeranê bêkariya karsazên hotelê ye, gelo hûn bêjin navbirî guhdarê teqeya pasdar û hêzên li ser sînor nebe, ku rojane kasibkar û kolberên Kurd dikuje?



Helwestên derheq vê bûyerê gellek tişt selimandin, gellek tişt ku tal û cihê şermê ne, lê rastî ne, rastiya beşek ji bi nav rewşenbîr û êlîtên me, ku mixabin ew xulamokên hikûmetê ne, ne bergirîkarên mafên xelkê.

Di wan rojan de, di nivîsînên wan de diyar bû ku çende perîşe ne bo herifîna deshilatê. Rejîmek ku ne bawerî bi wan heye, û ne jî bi mafê neteweya wan.

# Helîme Elîzade: "Roja herî nexweş a jiyana min, ev roj bûn ku hêzên PDKÎ ji Kurdistana Rojhilat vekişiyan û meqer û baregehên xwe ji nû ve li Kurdistana Başûr ava kirin."

**H: Arif Vêlzî**

Dema bas ji cihê jidayîkbûnê û warên bab û kalan tê kirin, rihetî û aramî û ferehiyek taybetî bi ser mirov de zal dibe.

Eva jî bi vê wateyê tê, ku jiyna rojê a mirov û warê bab û kalan, heya radeyekî bi hevdu ve hatine girêdan, û mirov dema ji şûnwarên bab û kalan dûr ket, bi tewahî hest bi kêmasiyekê di jiyana xwe de dike, û di dema herî zû de hewla vegeriyanê dide hekî bo demek kêm jî be. Lê dûrketina bi neçarî û yekcarî ji warê bab û kala bi qasekî birînek bi jan û giran e, ku bandorê dixe ser tewahiya aliyên jiyana mirov û jînê tal dike.

Lê şêrejinên Kurdistana Rojhilat û PDKÎ ku piraniya temenê xwe di nava refên şoreşê de û dûr ji warên bab û kalên xwe derbaz kirine, di hemberî rizgariya gelê Kurd û standina mafên xwe ên netewî û civakî de, bi qasekî xwedî îman û moralek bi hêz in, ku rê nadin dûriya jî warê bab û kalan bi ser hesta paqij a wan a netewî de zal bibe, û bi dilek pir ji hêvî û îradeyek asinîn ve, li pêşeroja xwe û zarokên xwe dinêrin û bi hêviya cardin vegeriyanê, jiyan û xebat û şoreşa xwe dimeşînin.

Helîme Elîzade jî yek ji wan şêrejina ye ku piştî derbazbûna 30 sal bi ser dûriya ji warê bab û kalê xwe, hêj weke rojên despêkî li ser jiyana pir ji zehmetî a şoreşê bi dilekî germ berdewam e, û pêşerojeke geş û vegeriyana bi serbestî û azadî bo warê bab û kalan bi dûr nabîne.

Helîme Elîzade derheq bi çavaniya nasiyariya xwe tevî PDKÎ, û herweha jiyana xwe ya hevpar di nava refên Partiya Demokrat de, weha ji Rojnameya Agirî re dibêje: "Her di despêka zarokatiya xwe de min nav û navbangê PDKÎ bihîstibû, lewra hesteke netewî di min de çê bibû, lê dema ku PDKÎ hêzên xwe ji nava bajarên Kurdistanê vekişandin, û baregehên xwe ji nû ve li deverên çiyayî ava kirin, gundê me jî yek ji wav deverên çiyayî bû ku baregeha partiyê li wir hate avakirin, her ava jî bûye sedem ku ez bi tewahî PDKÎ nas bikim û biryara tevlî şoreşbûnê bidim, û di sala 1985'an (1364) de jî min tevî Seyîd Ezîz Nîkcûyan ku pêşmergê Partiya Demokrat bû, jiyana hevpar ava kir û berhema jiyana me jî 3 keç û kurek in".



Helîme Elîzade piştî derbazkirina 30 sal jiyana tevî pêşmergeyekî, ku di rastî de jiyanek pirr ji talî û êş û elem, lê seranser serfirazî û serbilindî bûye, çavnihêriya xwe ji PDKÎ û herweha hevjinê xwe yê pêşmerge weha tîne ziman:

"Çavnihêriya min ji Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê ev e ku, derbazbûyiyekê bo wan jinan li berçav bigire ku bi salan e di rewşên cur bi cur de tevî hizba xwe bûne û zehmetî û keda wan ji pêşmerge kêmtir nebûye. Herweha derheq bi jiyana xwe ya hevpar jî min tu çavnihêrî ji hevjînê xwe nine, lê hêvî dikim ku di tewahiya qonaxên cur bi cur ên jiyana xwe de, ez û hevjîn û zarokên xwe, bi kêfxweşî û dilekî xweş jiyana xwe derbaz bikin û hewcehiyên zarokên xwe di her rewşekê de dabîn bikin".

Helîme Elîzade roja herî xweş a jiyana pêşmergatiya xwe weha tîne ziman: "Di jiyana tevî şoreşê de rojên xweş kêm in, lê rojên xweş bal min ew roj bûn ku hêzên pêşmerge di emeliyatan de bi ser hêzên dijmin de ser diketin û bi silametî vedigeriyan, yek bi yekê wan rojan ji boy min bi qasekî xweş bûn ku tu carî ji bîra min naçin".

Helîme Elîzade herweha roja herî nexweş a jiyana xwe jî, weha ji Agiriyê re vedigêre: "Roja herî nexweş a jiyana min, ev roj bûn ku hêzên PDKÎ ji Kurdistana Rojhilat vekişiyan û meqer û baregehên xwe ji nû ve li Kurdistana Başûr ava kirin."

Helîme Elîzade di dawiyê de bi gotinekê derheq bi rola jinan di Kurdistana Rojhilat de, hevpeyvîna xwe bi dawî tîne: "Tu şoreşek bê beşdariya jinan nahê kirin, û nehatiye kirin, û hertim jin xwediyê roleke berçav bûye di şoreşên Kurdan de.

Lewra Peyama min bo keç û jinên Kurdistana Rojhilat ev e ku, hewlê bidin bona bidestxistina mafên xwe ên zewitkirî, çi ji aliyê civakî û çi jî ji aliyê netewî, hertim piştevanê şoreş û pêşmerge bin".



## Li Kurdistanê her roj 4 jin dişewitin



**Li Başûra Kurdistanê, li gorî amarên nexweşxaneyan, şewitîna jinan bi rêjeyeke berçav zêde bûye û her roj bi kêmanî çar jin dişewitin an xwe dişewitînin.**

Bêhtirîn bûyerên sotina jinan li Duhokê hatine tomarkirin. Herî kêm jî jin li Silêmaniyê şewitîne yan xwe şewitandine.

Li gorî amarên nexweşxaneyan, di sê mehên pêşî yên îsal de 386 jin şewitîne yan xwe şewitandine. Di encamê de jî, 57 jê mirine. Herî zêde jin li Duhokê şewitîne ku hejmara wan 195 e.

Wisa xuya dike ku konferans, semînar û çalakiyên ku ji hêla çalakvan û saziyên jinan ve tên sazkirin, nebûne sedemê kêmkirina rêjeya xweşewitandina jinan.

Dihok yekem e

Herçiqasî hejmara xelkê Dihokê ji akinciyên Silêmanî û Hewlêrê kêmtir e, lê li gorî amarên çend nexweşxaneyên Dihokê, di nava sê mehên pêşî yên îsal de, 195 jin şewitîne û 25 ji wan mirine. Arî Hebîb ku yek ji berpirsên Rêveberiya Tendirustî ya Duhokê ye, vê hejmarê ji devereke wek Duhokê re zêde dibîne û di wê baweriyê de ye ku pirraniya wan bûyeran xweşewitandin in: "Jin û malbatên wan jî di dema xweşewitandina jinan de lê mikur nayên ku bûyer xweşewitandin e, lê hertim dibêjin şewitiye."

Li Hewlêrê 140 jin şewitîne

Li gorî amara Rêveberiya Giştî ya Tendirustî ya Hewlêrê, di sê mehên pêşî yên îsal de dora 140 jin şewitîn û 22 ji wan mirine.

Berpirsê Ragihandina Tendirustî ya Hewlêrê Faxir Kirmancî ji Rûdawê re got, li Hewlêrê jin bêhtir dişewitin, neku xwe dişewitînin: "Lê li qeza û nahiyeyên Hewlêrê xweşewitandina jinan zêdetir e. Çimkî li wir zextên derûnî û civakî li ser jinan zêdetir in."

Li Silêmaniyê kêmtir e

Lê li gorî amara Nexweşxaneya Hawarçûnê ya Silêmaniyê, rêjeya şewitîna jinan a herî kêm li Silêmaniyê bû.

Li gorî vê amarê, di sê mehên pêşî yên îsal de 51 jin şewitîne, 10 ji van jinên şewitî mirine ku 3 ji wan penaberên Sûrî û Îraqî bûn.

Rêveberê Nexweşxaneya Hawarçûna Silêmaniyê Şaxewan Sayib ragihand: "Sedemê sereke yê şewata jinan li ba me dernakeve, çimkî ti jinek nabêje min xwe şewitandiye. Hekî xwe şewitandibe jî, hêcetekê bo şewitîna xwe tîne. Lê bi rêya şêwaz û rêjeya şewatê, em tê derdixin gelo ew jin şewitiye yan xwe şewitandiye."

Rêveberiya giştî ya nehîştina şîdeta dijî jinan her meh amarên şîdetê li hemû qeza û bajaran dicivîne û di malpera xwe de belav dike. Lê serjimêriyên nexweşxaneyan derbarê şewitîna jinan ji serjimêriyên vê rêveberiyê cuda ne.

Li gorî serjimêriya rêveberiya giştî ya nehiştina şîdeta dijî jinan, di sê mehên borî de li her çar eyaletên Herêma Kurdistanê 92 jin şewitîne (58 şewitîne û 34an xwe şewitandiye). Herwiha par 294 jin şewitîbûn (197 şewitîne û 97an xwe şewiyandiye). Ev hejmar li gorî amarên nexweşxaneyan pirr kêmtir e, çimkî amarên nexweşxaneyan nîşan didin ku di 3 mehan de 389 bûyerên şewitîna jinan li nexweşxaneyan hatine tomarkirin.

Jin rastiyê nabêjin!

Civaknas Leyla Ebdulla ku ji nêzîk ve agehdarî rewşa şewitîna jinan e, behsa çend motîfan kir ku dibin fişar li ser jinan û dihêlin jin xwe bişewitînin: "Nemaze têkçûna rewşa aborî ku dibe sedemê derketina pirsgirêkên malbatî û şîdetê û jinan ber bi xweşewitandinê dibe."

Herwiha hinek ji wan jinan gava mêr dikin, temenê wan hîn biçûk e û nikarin reftarên derdora xwe qebûl bikin û her ku kêşeyeke biçûk jî derdikeve xwe dişewitînin.

Bi baweriya Leyla Ebdulla, jin rastiyê nabêjin û li xweşewitandinê mikur nayên: "Li nexweşxanê û li ber mirinê jî, rastiyê nabêjin û mikur nayên ku wan xwe şewitandiye. Lê dibêjin bi gaz an bi neftê şewitîne!".

**Çavkanî: Rûdaw**

## Jineke pêşmerge li Festîvala Cannesê ye

**Fîlma kurdî ya bi navê "Şevek Dirêj" (A Long Night) ku behsa jiyana jineke pêşmerge dike, di festîvala navdewletî ya Cannesê de hate nîşandan.**

Fîlma kurdî ya "Şevek Dirêj" ku ji aliyê derhênerê kurd Kamiran Betasî ve hatiye nivîsandin û çêkirin, û derhênerê fîlmê Kamiran Betasî li ser vê yekê ji Rûdawê re got, ez pir kêfxweş im ku ev fîlm di wê festîvala mezin de tê nîşandan.

Di dinyayê de gellek fîlm bo wê festîvalê tên şandin lê şansê hemiyan ê nîşandanê tine.

Betasî her wiha diyar kir ku fîlma "Şevek Dirêj" berhema hevbeş a Herêma Kurdistanê û Îmaratê ye û Rûgeş û Ravo jî tê de rolên serekî dilîzin.

Li ser çîroka fîlmê jî Kamiran Betasî got, di fîlmê de ku 14 xulek e, behsa jiyana jineke pêşmerge tê kirin ku sala 1977'an penaberî Îranê bûye, her wiha behsa êş û jiyana wan jinan tê kirin ku mêrên wan çûne şer, û ew jî zarokan xwedî dikin.



## Li Îranê zarok bi 400 hezar tûmenî têne firotin



**Çalakek mafê zarokan ragehand ku haydarî kirîn û firotina zarokan di welatê Îranê de ye, lê hêj nikar vê yekê piştrast bike ku diyardeya han bi tewahî di Îranê de belav bûye.**

Mihemed Lotfî emdamê nawenda Berevanî ji Mafên Zarokan li Tehranê ragehand ku, sedemên sereke ên kirîn û firotina zarokan di Îranê de Îtiyad û hejarî ye, û her di vê derheqê de got: "Îtiyad û hejarî tevlî hevdu bûne, û îtiyad hejariyê tîne, lê mixabin niha hinek malbat hene û ji îtiyadê paqij in, lê bi sedema hejariyê zarokên xwe difiroşin. Eva di demekê de ye ku heya niha tu amarek derheq bi kirîn û firotina zarokan di Îranê de niye, û nehatiye îsbatkirin ka gelo ji bilî Tehranê, di bajarên din ên Îranê de jî bazirganî bi zarokan tê kirin?

Lê eva ku tê zanîn ev e ku li gorî madeya yekem a Pirotokola Êlhaqî a reşnivîsa navnetewî a mafên zarokan, "Kirîn û firotina zarokan bi vê wateyê ku zarokek ji aliyê kesekî/ê ve di hemberî wergirtina pere de, tevî kesekî/ê din bê veguherîn, qedexe ye".

## Piştî hesp, kîsel û pişîkan, dora kûçikan e!

**Derhênerê navdar ê kurd Behemen Qubadî vê carê jî fîlemekê li ser kûçikan çêdike bi navê "Kûçikan Himêz Bikin".**



Di daxuyaniyekê ku li ser rûpela facebookê ya derhênerê kurd Behmen Qubadî hatiye belavkirin, hatiye gotin ku Qubadî dixwaze fîlmekê li ser kûçikan û parastina mafên wan çêbike.

Navê fîlmê "Kûçikan Himêz Bikin" e.
Li gorî daxuyaniyê, Behmen û hevalekî xwe salekê beriya niha dest bi nivîsandina senaryoya wê fîlmê kirine û dê di demek nêzîk de nivîsandina senaryoyê xilas bibe.

Her wiha hat gotin ku dê heta dawiya îsal Qubadî û ekîba wî li Almanya û Tirkiyê dest bi kişandina dîmenên fîlmê bikin.

Qubadî di fîlma "Kûçikan Himêz Bikin" de, dê behsa mafên ajelan bi taybetî kûçikan li Rojhilata Navîn û Îranê bike.

Beriya niha jî Qubadî fîlmên "Dema Hesp Serxweş Dibin", "Haya Kesî ji Pişîkên Îranî Tine" û "Kîsel jî Difirrin" çêkiribû.

## Bilind li ser Narîn Efrînî distre

**Hunermend Bilind Îbrahîm bû bavê keçekê, û ji ber hezkirina wî ji serkirda YPJ'ê li Kobanî Narîn Efrînî re, navê keça xwe ya sêyemîn kire Narîn.**

Selman Şêx Memî ku tekstên stranên Bilind Îbrahîm dinivîse, ji Rûdawê re got: "Qehremaniya Narînê, bandoreke mezin li Bilind Îbrahîm kir. Bilind daxwaz ji min kir ku helbestekê li ser Narînê binivîsim da bike stran."

Bilind Îbrahîm ku xelkê Şingalê ye, Enstîtûya Hunerên Ciwan li Duhokê xilas kiriye, beriya pênc salan zewiciye û bavê sê keçikan e.

Piştî bobelata Şingalê, Bilind stranek li ser Şingalê tomar kir. Niha jî Bilind du stranan amade dike, yek li ser şehîdan e û strana din jî li ser Narînê ye.

## Şehla Lahîcî: Wezareta Çandê yasayên xwe cî bi cî nake

**Birêvebira Weşanxaneya "Roşengeran" Şehla Lahîcî: dibêje: " Rewşa çapemeniyan di dewrana Hesen Rûhanî de li çav derbazbûyî tu guhertinek bi xwe ve nedîtiye.**



Wê herwisa ragehand ku nawendek cuda ji Wezareta çandê dest bi komkirina pirtûkan û daxistina pirtûkfiroşiyan di pêşangeha pirtûkan de kiriye.

Navbirî herwisa dibêje ku ji sala borî ve heya niha 55 pirtûk pêşniyar kirine bo çapkirinê, lê heya yek ji wan pirtûkan jî îzna çapkirinê pê nehatiye dan.

Şehla Lahîcî dibêje: "Me deng da Rûhanî, da ku rewşa çandî, li gora diruşmên xwe kêmekê baştir lê bike, lê mixabin rewş nehatiye guhertin.

Min zêdetir ji 30 salan ceribandina kar di biyavê bilavkirina pirtûkan de heye, û ez bi başî hêlên sor nas dikim".

## Gotinên Navdaran



**A: Firat Ceweri**

Jina ku jê tête hezkirin, hertim bi heq derdikeve.
**Alfred de Musset**

Jin bi tenê bi çavan nayêne neqandin, tu wê, ji çavan bêtir bi guh bineqîne.
**Thomas Fuller**

Kabîliyet ew e ku mirov pê bilind bibe, ne ku pê nizim bibe.
**Rousseau**

Ez her tiştî diceribînim, lê tiştê ku ez dikarim bikim, ez dikim.
**Herman Melville**

Qeder dijmineke ecêb e.
**Euripides**

Qederê tu caran zora îrada min nebiriye.
**Napoleon**

Her dil qedera xwe ye.
**Bailey**

Lêdana dil dengê qederê ye.
**Sciller**

Hatina xwe em bi xwe hazir dikin, paşê jî em dibêjin, qeder e.
**Disraeli**

Tolhilanîn şêrîn e.
**William Paintier**

Tolhilanîn, gotineke ku bi mirovatiyê re têkiliya wê tune ye.
**Seneca**

# Zimanê Kurdî



Beşa 8. Dema xwendinê

## Ji bo em nexweş nekevin, divê em , çi bikin?



Parza, zarokan ji nexweşiyan diparêze.



Em vîtamîn in, li dijî mîkroban hêz didin we.



Ez hestiyên zarokan xurt dikim.



Ez av im, bê min jiyan nabe.

Valahiyan bi bêjeyên “parza, vîtamîn û av”ê dagirin.

Li dijî mîkroban hêz dide mirovan:..............................

Hestiyên zarokan xurt dike:..............................

Bê wê jiyan nabe:..............................

Zarokan ji nexweşiyan diparêze:..............................

# Tiştonek



A: Mahir Berwarî

1- Dara şirîn e, gulî zêrîn e.

2- Mamkê mino, hakim yê dibin bergûza ve.
- Mamkê mino, pismîrê bi şepkekî.

3- Tiştekî min heye, binî ax e, navê şax e, serî zax e/zêr e.
- Di girim misteké, dihavêm deştekê.

4- Çav reşê deştê, du pê gehiştê, êxiste ser tenîştê.

5- Davêjim çalê, heta salê.
- Tu bixwî dikeve ber didanan, tu ne xwî dibe gul û gulistan. (* baxçe û bûstan).

6 - Ez çûme deşta gever e, min teyrek dît bi şaş û perr e, dara hişk e, fêkiyê terr e.
- Teyrek hat, nanek pat, ne fitr e, ne zekat.

7- Behra şîn e, av tê nîne. (* Cara bo kevzê jî dibêjin.)
- Bi spî radiçînit, bi surî têdikin, bi keskî didirûn.
- Li binê kevrî bide naşkê, pavê di şikefteka tarî de dişkê.
- Tiştê min tişt e, yê bi ber û pişt e, pavêje hemû deran naşkêt, pavêje şkefteké da dê şkêt. Pavêje pişt hevt çiya çi lê nahê, pavê di kunekê da, dê şikêt.

8- bi binêve şîn e, li bazara reş e, li malê sor e.

9- Tenûrka êk kade.
- Huve hestî, wêve hestî, di nav da şekra bestî.

Têdîtin: Amadekar destkariya devoka metelokan nekiriye

**Xwendevanên hêja! Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**



Agirî

- Rojnameya "Agirî" di van malperên jêrên de bixwînin:
- www.Kurdistanmedia.com
- www.Agirimedia.org
- rojnamaagiri@gmail.com
- www.facebook.com/Agirikirmanji

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Hejmar (254)

# Ew rastiyên ku heya niha derheq bi şaristaniyeta "Maya" veşartî mane

**Şaristaniyeta Maya heyamê 600 salan berdewam bûye, û cihê akincîbûna wan dikeve navbera welatên Mêkzîk û Gowatmala û Bilîz û Silwador û Hindûrasê de.**

Eva jî hindek zaniyariyên din derheq bi şaristaniyeta Maya:
-Niha jî 7 milyon kes ji şaristaniyeta "Maya"yê mane, û di nîve girava Yokatayê dijîn ku di bin kontrola Mekzîk û Gowatmala û Bilîzê de ye.

-Zanista Pizîşkî di şaristaniyeta Maya de pêşkevtî bûye, û wî çaxî pisporên mayayan karîne ku bi pirça mirovan birîna ji nû ve bidirûn û herweha didanên mirovan ji nû ve pirr dikirin.

-Di serdemê şaristaniyeta Maya de dîl û kole weke qurbaniyên mirovî dihatin pêşkêşkirin. Bi vê wateyê ku dîl û kole bi rengê Şîn dihatin rengkirin, û piştre dixistin ser Hêremên herî bilind û diketin ber Tîrên xelkê, yan jî bi saxî singê kole û dîlan vedikirin û dilê wan derdixistin. Gellek caran jî kole û dîl kewîl dikirin.
-Niha jî hinek ji xelkê paşmayî ji şaristaniyeta maya bi xwînê qurbaniyan didin, lê ne weke berê, û niha bi Mirîşkan qurbaniyê didin.

-Mayayan pitir ji rojhejmêrekê hene, lê berevajî wan gotinan ku çend sal berî niha belav bûn, tu pêşbînî ji aliyê Mayayan ve nehatine kirin ku di sala 2012'an de dunya wê ji nav here.

-Piraniya nivisînên Mayayan di dema êrîş û dagîrkariyên Îspaniya de ji nav çûn, lê di sedsala dawî ya wê şaristaniyetê de, zanayan karîn ku hinek ji wan nivîsandinan peyda bikin û wergêrin ser zimanên îroyî.

-Mayayan her weke Ereban Sifir bi kar anîne.

**Çavkanî: wikipedia.org**



## Çend zaniyariyên balkêş li ser Çînê



Nêzîkî yek milyon hevwelatî di Çînê de hene ku dahata wan di rojê de kêmtir ji yek dolarî ye.

-Çar car zêdetir ji piraniya welatên cîhanê, sizaya kuştinê di Çînê de tê cî bi cî kirin.
-Torên Facebook û Twiter û New York Times'ê di wî welatî de, ji sala 2009'an ve hatine bilokkirin.

-Mezintirîn mola ku di Çînê de hatiye çêkirin, %99 a wê betal e.

-Di Çînê de 35 milyon kes heya niha di Şikevtan de dijîn.

-Her 30 çirkeyan carekê zarokek nesaxlem di Çînê de ji dayîk dibe.

-%78 ji wan pirogramên Kampiyotêrî ku li Çînê di sala 2010'an de hatibûn dabezandin tezwîr bûn.

-Yek li ser sê ji goreyan di Çînê de têne çêkirin, û bajarê "Zhuji" bi bajarê goreyan hatiye naskirin.

-Di Çînê de her sal milyonek zarok têne liberbirin, yan jî têne firedan, ew jî li ber yasaya wî welatî ku tenê rê dide ku tenê zarokek hebin.
-Pêlîstokên Atariyê di Çînê de qedexe ne.

-Her pênc rojan carekê, talareke bilind di Çînê de tê çêkirin.

-Ev hevwelatiyane ku di Çînê de roja şemiyê diçin bo Kenîseyê, zêdetir in ji wan hevwelatiyane ku li hemû Ewropayê diçine Kenîseyê.

-Hersal çar milyon pişîk di Çînê de têne xwarin.

-%90 ji ava bin'erd ya bajarên Çînê bo vexwarinê nabe.
-Di Çînê de çar bajar hene, ku zêdetir ji 10 milyon kesî nifûsa wan e.

## "Jawhwar Sarnayov" hukmê îdamê jê re hate birîn

**"Jawhwar Sarnayov" yek ji wan du birayan ku teqîna Maratona Boston a Amerîkayê encam dan û di encam de 3 kuştî û 164 birîndar jê çêbûn, roja 15'ê Gulana sala 2015'an di dadgehek Amerîkayê de bi cezaya bidarvekirinê hate mehkûmkirin.**

Dadgeha keysa Maratona Bos tonê ragehand ku "Jawhwar Sarnayov" 21 salî, di 15'ê heyva Nîsana sala 2013'an de, tevî birayê xwe bi navê "Tamirlan" di teqîna Maratona Bostonê de beşdar bûn, û piştre birayê mezin wate Tamirlan di encama pevçûna tevî polîsan de hate kuştin û "Jawhar" jî hate binçavkirin.

Eva di demekê de ye ku di herêma Masaçosêt a Amerîkayê de, ji sala 1982'an ve cezaya bidarvekirinê hatiye sekinandin, lê bi sedema vê ku di keysa Maratona Bostonê de dewleta federal bi xwe sikalakarê keysê bû, cezaya bidarvekirinê ji "Jawhar" re hate diyarîkirin. Jiber ku di yasaya Amerîkayê de dewlet dikare daxwaza cezayê bo tawankaran bike.

